Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 75
15'ê Çiriya Paşîn
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

Konferansa Serhildana Simkoyê Şikak Di Sedsala Derbasbûyî De Li Norwejê Bi Dawî Hat

R. 5



Em Çawa Xisara Cudabûnên Nava Partiyan Kêm Bikin?



2

Mesûd Tek: Tenê mirov bi gelê xwe û xortên gelê xwe re dikare piştrast be.



3

Xelata Nobelê




6

ÇANDA KEDÊ



9

Hevpeyvînek Taybet Bi Dr. Selah Seedula Re



10

### Ji Neteweyên Yebûyî Gaveke Bi Wate:

# 15'Ê ÎLONÊ BÛ ROJA CÎHANÎ YA DEMOKRASIYÊ



Neteweyên Yekbûyî, roja 15'ê Îlonê li tevayê cîhanê, weke **Roja Cîhanî a Demokrasiyê** pejirand. Daxuyaniya Civata Giştî a UY'ê li ser pirsê wisa ye:

Sazûmana Giştî ku 192 endamê xwe heye, li ser bingeha pêşxistin û rêzgirtina demokrasiyê, mafê mirovan û azadiyên bingehîn, bi sala 2008'an re, 15'ê Îlonê weke Roja Navneteweyî a Demokrasiyê pejirandiye.

Bi sala 2008'an re, 15'ê Îlonê dê weke Roja Navneteweyî a Demokrasiyê bê pîrozkirin.

NY li benda wê ye ku, hemû welatên endam, dezgehên UN'ê, dezgehên navdewletî û hêzên civakî, li ser cî û nirxê 15'ê Îlonê xelkê ronî bikin û li ser pirsê zaniyariyê belav bikin.

### Serokatiya Herêma Kurdistanê:

## "Madeya 140 Nayê Paşdexistin"

***Serokatiya Herêma Kurdistanê daxwazê dike, ku rêz li îradeya gelên Îraqê û destûra wê bihê girtin, dev ji destwerdanên yek li duv yekê ên nav kar û barên navxweyî yên Îraqê bê berdan.***




Di derheq daxuyaniyên Wezîrê Derve yê Komara Îslamî ya Îranê de, ku gotibû divê madeya 140 ji bo du salên din bihê paşxistin, berdevkê fermî yê bi navê Serokatiya Kurdistanê ragihand, ku ev nerîn ji kîjan alî jî bên, nayên qebûlkirin û desttêwerdana di nav kar û barên navxweyî yên Îraqê de ye.

Deqa daxuyaniya Serokatiya Herêma Kurdistanê wiha ye:

Dezgehên ragihandinê nûçeyek li ser gotinên Wezîrê Derve yê Komara Îslamî ya Îranê rêzdar Muttekî belav kirine. Ew nûçe dibêjin ku Muttekî daxwaz kiriye du salên din cîbecîkirina madeya 140'ê destûra Îraqî bihê paşxistin. Ev madeya destûrî jî bi taybetî girêdayî bajarê Kerkûkê û hinek deverê din e. Ev nerîn û bêjedanên weha ji kîjan aliyê bên jî ne mimkin e bên qebûlkirin. Ew li dijî destûra Îraqê ne û destwerdaneka aşkira ya nav kar û barên Îraqê ye. Ew tu arîşeyan çareser nake û dibe egera têkdana rewaşê û alozkirina arîşeyan. Serokatiya Herêma Kurdistanê daxwazê dike, ku rêz li îradeya gelê Îraqê û destûra wê bihê girtin, dev ji destwerdanên yek li dû yek ên nav kar û barên navxweyî yên Îraqê bê berdan.

**Berdevkê Fermî yê bi navê**
**Serokatiya Herêma Kurdistanê**
**07. 11. 2007**

### Sarkozî Nerazîbûna Xwe Li Hember Endambûna Turkiyê Li YE'ê Da Xuyakirin



Serok Komarê Fransayê, Nîkolas Sarkozî di axavtinekê de li hember Parlemana Ewropayê li bajarê Strazborgê careke din nerazîbûna xwe li hember endambûna Turkiyê di YE'ê nîşan da û got: "gaveke bi vî awayî sînorê Yekîtiya Ewropayê digehîne Rojavayê Asyayê û renge rojekê Sûriye jî daxwaza endambûna di YE'ê de bike".

Wî anî ziman ku Turkiye welatek e ku dikeve parzemîna Asyayê û akinciyên wê 100 milyon kes in û dê gellek arîşeyan bi xwe re bine nav Yekîtiya Ewropayê.

Hêjayî gotinê ye ku Fransa yek ji wan welatên endamê YE'ê ye ku bi xurtî dijberiya endambûna Turkiyê dli YE'ê de dike.

# Em Çawa Xisara Cudabûnên Nava Partiyan Kêm Bikin?

**Mistefa Hicrî**

Hizbayetî pêkhatî ye ji kar û tekoşîna bikom ji bo gihîştin bi armanceke hevbeş. Bi vî awayî qebûlkirina endambûn di partiyekê de hez û xwestekek taybetî (şexsî) ye. Kesek yan hin kes bidestveanîna hêvî û xweziyên xwe di çarçoveya partî yan girûpekê de bi mimkun dizanin û têde dibin endam, lê di pêvajoya kar û tekoşîna wê partiyê de hin kes mandî dibin, digihîjin wê qenaetê ku armancên wan di vê çarçoveyê de bicî nahên, pirsên şexsî weke parastina vêc û berjewendiyên takekes, taqim û gellek mijarên din dibin sedema veqetiyan û cudabûna kesekî/ê yan hin kesan ji girûpekê û pêkanîna hin girûp û destekên din û dubarebûna wê proseyê. Dibe ku ev kombûn û veqetiyan di şekl, armanc, dem û cih de bi hev re biferq û cuda bin, lê ev cudahî tiştek li kakil û cewhera pirsê naguherîne, ew jî cudabûn e.

Bê guman hemû veqetiyanek jî – heke heta di navbera du kesan de jî be – êş, elem û ziyan û xisarên xwe hene û renge jî ku berhemên baş jî lê bikevin, îca ew berhem dikaribe ji bo kes yan taqimeke/î biçûk be an pêşketina xebat û tekoşînê bi qazancê netewe yan welatekê jê bikeve. Ewa ku endamên malbatekê bi hev re ji bo bexteweriya malbata xwe kar bikin û hemû hewl û cehda xwe di pêxema hevgirtin û tebahiya endamên malbatê de bidin, xwezî û hêviyek e, lê dema ku kesek an hin kes di malbatê de dibin sedema vê çendê ku ew malbat ne tenê nikarin ji bo bextiyariya malbatê bixebitin, belku arîşe û dubendî di nava wan de – îca bi her sedemekê be – digihîje astekê ku jiyana tevan têk dide, cudabûn û veqetiyan dibe take rêya çareseriyê. Lewra encama wê cudabûnê tenê encamên nerênî nîn in, belkî dikare encamên erênî jî têde hebin. Li vir pirsek qut dibe, ew jî eva ye ku: Gelo rêyek heye ku em encamên neyînî ên wan cudabûnane kêm bikin? Basa vê nivîsarê bersiva wê pirsê li dîtin û nêrîna qazanc û berjewendiya giştî dide, ne berjewendiya tak an girûpek biçûk, ji ber ku pirr caran heye ku ev du berjewendiyene ne tenê bi hev re ne hevterîb û hevhêl in, belku li dijî hev in.

Hemû ew hevwelatiyên kurd ku di temenê min de ne û di nav refên xebatkarên siyasî de bûne yan dîroka partiyên siyasî ên



Kurdistanê xwendibin, haydarê dehan cudabûnan di nava partiyên hemû parçeyên Kurdistanê de ne. Heke em lênêrînekê bi ser xebata partiyên Kurdistana Îranê bikin, ew rastiye hemû ber çavê me. Encama piraniya herî zêde a wan cudabûnan, arîşe û hevrikiya aliyan tevî hev bûye û beşek girîng ji sedemên van pirsgirêkane jî vedigere bo wê çendê ku aliyê veqetiyayî berevajî azîn û usûlên naskirî û nivîsandî, xwe bi xwediyê bingehîn ê wê partiyê dizane ku bicî hêlaye. Mînaka wê berçavî (diyarde)iya xirab bila ez her ji Partiya Demokrat bas bikim.

Piştî serkevtina şoreşa gelên Îranê di sala 1979'an de û piştî kongreya çaran û di bin bandora Partiya Tude de, taqimek ji Partiya Demokrat cuda dibin û bi navê **"Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê – Pêrewên Kongreya Çaran"** diçine çepera rejîma Komara Îslamî û berbirûyê Partiya Demokrat dibin. Her çiqas beşek ji pirsgirêkên partiyê bi wê girûpê re vedigere bo hevçeperbûna wan tevî rejîmê, lê pareke din ji bo wî nav û nasnavî dizivire ku di rastî de bi neheqî li ser xwe danîbûn. Di wê demê de, rêberiya Partiya Demokrat rêzoke biryarek li dijî wê taqimê der kir û di encamê de bi hev re ketin dijberîkirinê. Beşek ji delîl û sedemên Partiya Demokrat derbarê navê wan eva bû ku kêmaniyek ji rêberiya hilbijartî a kongreya 4'an (7 kes ji tevaya endamên rêberiyê) ku di kongreyê de amade bûn û deng dane, niha ku Partiya Demokrat bicî dihêlin, çi din Partiya Demokrat nîn in, ji ber ku Partiya Demokrat bi piraniya rêberî bername û pêrewa xwe a hundirîn li ser cihê xwe ye. Lewra taqima veqetiyayî ne xwediyê berheqî û nemeşrûiyeta wî nav û nasnavî ne.

Piştî derbazbûna çend salên din û îcar di Kongreya 8'an a partiyê de, careke din heman senaryo bi hinek ferq û cudahiyan di bîr û nêrînan de dubare dibe. Bi vî awayî ku kêmaniyek din ku li pey kongreya 4'an tevî partiyê man û nav û navnîşanê Partiya Demokrat ji bo taqima cudabûyî a kongreya çaran bi nerewa û neheq dizanîn û di biryardana li dijî wan de beşdar bûn, karê wan yê nerewa kirin û navê xwe danîn **"Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê – Rêberiya Şoreşger"** ku mixabin ew jî bûye sedema derd, elem û azareke zaf û dîrokekî tal.

Lê ya balkêştir ji van du cudabûnan, veqetiyana sêyem di Partiya Demokrat de bû ku di 15.09.1385 (06.11.2006)'an de rû da. Lewra dibêjim balkêştir, ji ber ku dînamîka liv û tevgera vê cudabûnê bi destê kesekê ve bû ku li her du veqetiyanên berê tevî Partiya Demokrat ma û di rêza wan biryarbidestan de bû ku biryara li dijî aliyên cudabûyî der dikir, ji ber vê yekê ku navê xwe danîbûn Partiya Demokrat û encama wan birayaran jî ron û eşkere bû ku bû sedema çi, ku çi vê carê bi xwe kete rêza wan kesên ku Partiya Demokrat bicî hêlan, lê niha xwe bi Partiya Demokrat dizane û bi hevbîrên xwe re dest bi ser wî navî de girtine. Bi wê wateyê ku ew karê ku di du qonaxên derbasbûyî de bi nerewa û neyasayî dizanîn û her wilo jî bû, her wî karî ji xwe re yasayî û heq dizanin. Mixabin vê carê jî ev karê neheq gellek pirsgirêk û kêşe di nav Partiya Demokrat û taqima cudabûyî de pêk anîne. Ji bo çareserkirina wan li vir em dê bi kurtî qala wan arîşe û pirsgirêkan bikin, çunkî Partiya Demokrat li ser vê baweriyê ye ku heke cudabûna vê carê weke carên berê gellek xisar û ziyan di şûnde hebûne, bila em zirar û ziyanên aloziya navbera partiyê û wî alî û qebeheta cudabûnê jî kêmtir bikin. Weke gotineke pêşiyan a kurdewarî ku dibêje: "**Zirar ji nîvê jî vegere, her qazanc e**".[1]

Girifta vê yek naviyê eva ye ku:

1.Xelkê dixapîne û ji wan re nahên cudakirin. Nimûneya herî nû a wan qelbkirinan, şaşkirina Partiya Komunîst a Fransayê bû, çaxekê ku nûnerê Taqima Mela Hesen Restigar bi navê Partiya Demokrat ve daxwaza peyama piştgiriyê ji bo kongreya xwe ji wan kiribûn. Ji bilî vê yekê, rojekê hevrêyek partiya me di peyameke telefonî de ji min re got ku rojnameya **'KURDISTAN'** ya her du aliyan digihîje destê min, lê tenê bi dîtina wêneyên nava rojnameyê ez dizanim kîjan rojname ya we kîjana ye! Bi rastî heke kesek wêneyan jî nas neke, divêt çi bike? Yan heke hat û yek ji wan helwesteke siyasî ya çewt û şaş girt, an karek xelet kir, çima ew şaşî û çewtî bi ser her duyan de bişkê? û... .

2.Li gor Pêrewa Hundirîn a Partiya Demokrat, ew nav ji bo wê partiyê hatiye diyarîkirin. Pêrewek ku di çend kongreyên berê û yek ji wan kongreya herî dawî (kongreya 13'an) de hatiye pejirandin. Di wê kongreyê de endamên kongrê bi aliyê cudabûyî ve jî deng jê re daye û heta kesek jî li dijî wî navî nesekiniye. Ew kongre kongreyek qanûnî bûye, ji ber ku pêka yasaya partiyê pêk hatiye, ew qanûna ku li dema desthilata taqima veqetiyayî – ku beriya kongreya 13'an piraniya rêberiya partiyê di destê wan de bû – hatiye pejirandin, lewra wan jî tevî endamên din ên kongreyê deng bi meşrûiyet û berheqiya kongrê dane.

Bi vê sedemê, demekê kêmaniyek ji

Dom di rûpela 5'an de

---

[1]. Aliyê cudabûyî ji bo ku bidin xuyakirin navê xwe guheriye,, heyamekê navê xwe kirin bi "**Partiya Demokrat ya Kurdistanê – Îran**", piştre ragehandin navê wan 'Partiya Demokrat ya Kurdistanê' ye û peyva 'Îranê' rakirine. Lê di rastî de evana cudahî nîn in.

*Mesûd Tek, siyasetvan û Sekreterê Giştî yê PSK:*

# "DEWLETA TURKİYÊ PÊŞKETİNÊN KURDAN Lİ BAŞÛRÊ KURDİSTANÊ Bİ XETEREK MEZİN Jİ XWE RE DİZANİN"

**Xwendvanên hêja, rojeva siyasî a Turkiyê piştî hilbijartinên îsal û doza Kurd di vê navberê de, biryara Parlemantoya Turkiyê bona operasyona leşkerî bo ser Herêma Kurdistanê mijarên hevpeyvîneke taybet a Agirî bûn, bi birêz Mesûd Tek, siyasetvan û Sekreterê Giştî yê Partiya Sosyalîst a Kurdistanê.**

**Hevpeyvîn/ Selîm Zencîrî**



**Aqibet piştî heyamek dûr û dirêj tevgeriyan bi pirs û kirîzên navxweyî re, hilbijartin li Turkiyê de birêve çû û Partiya desthilatdar a AKP'ê bû xwediyê zorahiya dengan di Parlemantoyê de, lê gelê Kurd bû xwediyê 23 Parlemanteran! sedem?**

Rast e 23 Parlemanter ku bi nasnameya xwe Kurd in û kurdatiya xwe înkar nakin, çûne Parlemanê û li gorî nifûsa Kurd hindik in. Lê di partiya AKP'ê de jî zêdetir ji 80 Parlemanterên Kurd hene ku di nava wan de jî gellek însanên zana û welatparêz tên dîtin. Lê di rastî de li şiyan û karîna Kurdan de heye ku gellek zêdetir ji 23 nûneran bişîne Parlemanê, lê di Turkiyê de du asteng li pêşiya Kurdan de hene. Yekem, di sîstema hilbijartina Turkiyê de qas yan rêjeyek bo Partiyan diyarî kirine ku %10 a dengên giştî ye. Eva jî berbend yan seddek e li pêşiya Partiyên Kurdî û bi enqest bo temirandina dengê heqxwaziya gelê Kurd li Parlemanê de hatiye danîn.

Astenga duyemîn, nebûna yekîtiyê di navbera Kurdan de bû. Bi raya min ger Kurd bi giştî (sosyal, çep, demokrat, Îslamî û heta serok eşîret û melayên welatparêz) hevdeng bûna û bi yek lîste beşdar bûna, dê karîbana bi hêsanî wê rêjeyê biqedînin ... lê mixabin serî negirt.

**Lê çawa bû ku AKP'ê li bajarên Kurdakincî de piraniya dengan bidest xist?**

Yekem, partyên Kurdî wekî partî beşdar nebûn û wekî berbijarên serbixwe beşdar bûn. Duyem, AKP di heyamê hilbijartinê de zimanek nerm bi nîsbet pirs û doza Kurd û hikûmeta Herêma Kurdistanê girte pêşiya xwe. AKP wê demê weke mafxwarî û zulmlêkirî dihate berçav, ew jî zêdetir ji ber zext û givaşên kemalîst û generalan.

Lê li hember de partiyên nasyonalîst yên din wekî Partiya Komara Gel, Tevgera Nasyonalîstên Çep û ... ji ber wê ku partiyên sîstemê ne, faşîst û kemalîst in, di heyamê hilbijartinê de kar û xebata wan tenê dujminatiya bizava neteweyî a gelê Kurd, Kurdistana Başûr û Parlamentoya Kurdistanê bû.

Sêyem, eva bû ku AKP'ê bi îmkanatên dewletê li heyamê desthilatdariya xwe de hin karên xizmetguzariyê li gund û bajarên Kurdistanê de kirin û bala Kurdan kişande aliyê xwe. Lê bi baweriya min ew Kurdên ku dengê xwe dane AKP'ê, karek baş kirin. Ji ber ku hilbijartina Turkiyê di navbera eniya Kemalîst û ne Kemalîstan de bû. Eşkere ye ku cihê Kurdan ne di eniya Kemalîstî de ye. Çûnku sîstema kemalîzmê bi hemû naveroka xwe dujminê azadiya gelê Kurd e. Wê demê me jî dawxaz kir ku dengê xwe nedin kemalîstan, vêca kemalîst çi Kurd bin û çi jî Turk, ferq nake û ew bo me xeta sor bû.

**Lê mixabin her ew AKP ya ku piraniya Kurdan dengê xwe jêre avêtin, bi hevkariya Kemalîstan piştî hilbijartinê, biryara êrîşa leşkerî li dijî Herêma Kurdistanê di Parlemantoyê de dane erêkirin. Hûn sedemên wê bo çi vedigerînin?**

Rast e, şikesta Kemelîstan di hilbiartinê de nahê vê wateyê ku hevrikî û rikeberanê bi dawî hatibe û Kemalîst meydanê vala bikin! Na, ew her di çepera xwe de ne. Lewra Jeneralan pîlanek din dan pêşiya xwe û xwestin ku ji xala lawaz û zeîf ya AKP'ê(pirsa Kurd) derba xwe biweşînin. AKP'ê jî dixwest ji aliyekê dilê Kurdan xweş bike û ji aliyê din jî dilê nasyonalîst û jeneralên Turk bidest bixe û vê balansê biparêze daku li pêşiya wan de nebin asteng. Lê generalan bi başî ji vê derfetê mifah standin, li hemberî hevdîtin û pêwendiyên bi Herêma Kurdistanê re helwest girtin û eşkere kirin ku nabe em tevî – terorîstan – bicivin. Çûnku Hikûmeta Herêma Kurdistanê piştgiriya – terorîstan – dike!

Lê piştî hilbijartinê me dît ku tund û tûjî li Turkiyê zêde bû. Li Colemêrgê êrîş li ser Mînîbosekê hat kirin ku têde 11 caş û kirêgirtiyên Kurd hatin kuştin û bi baweriya min karê dewletê bi xwe bû. Piştî hingê li boseyek PKK'ê de 13 esker hatin kuştin, dûre 12 esker paşan 8 esker hatin girtin. Bi giştî rewşa siyasî ya Turkiyê aloz bû, bi fîtik û paldana general û medyaya Tirk, hesta nasyonalîstî a Tirkan bilind bû. Lewra AKP'ê nekarî xwe li hemeber wê lehiyê de bigire û neçar ma ku bi zimanê wan bipeyive. Loma ew biryar di Parlemanê de pesend kirin û hikûmet serbest hiştin bo êrîşa ser Herêma Kurdistanê bi hêceta lêdana binkeyên PKK'ê.

Lê di esas û bingeh de armanca wan ji êrîşê, Hikûmeta Herêma Kurdistanê ye. Ji ber ku siyaset û stratejiya emnî – neteweyî a Tirkiyê her sal xalên xeternak û cihê tirsê bo ser Tirkiyê destnîşan dike. Xala yekemîn û herî xeternak bo wan pirsa Kurd e û bi gef û metirsiyek mezin bo ser asayişa xwe dihesibînin. Lewra bi eşkere gotin ku xala xeternak bo Turkiyê Hikûmeta Herêma Kurdistanê ye. Ew wiha difikirin ger di pêşerojê de Kerkûk jî vegere ser Herêma Kurdistanê û madeya 140'ê cî bi cî bibe, wê demê Kurd dê di warê aborî de bihêz bibin û êdî em nikarin pêşiya bidewletbûna Kurdan bigirin.

**Piştî seredana Erdoxan bo Amerîkayê û hevdîtina wî bi Buş re, hûn rewşê çawa dinirxînin?**

Zirûf hinekê armatir bûye û wiha dixuye ku wan li ser hin xalan lihev kirine. Lê Buş bi eşkere ji wan re got ku em nahêlin hûn êrîşê bikene ser Başûrê Kurdistanê. Bona wê ku vê gavê Herêma Kurdistanê aramtirîn devera Îraqê ye û em razî nabin ku hûn tenahiya deverê tevlihev bikin.

Aliyê din jî Amerîka jînosîd û komkujiya ermeniyan li serdemê Împeratoriya Osmaniyan de wekî kartek givaşê li dijî Tirkiyê bikar tîne, wê yekê jî tesîra xwe li ser arambûna rewşê heye û renge bi hev re îtifaq kiribin ku hûn êrîşê nekin, em jî basa vê jînosaydê nakin.

**Egera operasiyona leşkerî ta çiqasê heye?**

Eva pirsgirêkek mezin e. Him Amerîka, him YE'ê û bi giştî hemû cîhan dijî operasiyona Turkiyê bo ser başûr e. Tirkiyê bê îzna Amerîkayê nikare êrîşê bike. Lê renge operasiyonek bi tengasî, xaw û bo midehek kurt li ser sînor, çiyayê Qendîlê û li dijî binkeyên PKK'ê bike. Heta operasiyonên biçûk jî divêt bi pesenda Amerîkayê bin. Amerîka tim ji Turkiyê re dibêje ku ji bo çareseriya vê pirsê divêt hûn bi Îraq û Hikûmeta Herêma Kudistanê re gotûbêjê bikin. Lê mixabin hetanî niha Turkiye amade nebûye ku bi Hikûmeta Herêma Kurdistanê re gotûbêjê bike. Çi bi erênî û çi jî bi nerênî ew neçar in ku li ser maseya gotûbêjê birûnên. Lê ger êrîşê bike, dê di piroseya YE'ê de bikeve tengasiyê, renge Yekîtiya Ereban jî li dijî Tirkiye bisekine. Çunku Îraq welatek erebî ye û li gor pirensîpên Yekîtiya ereban, her welatek erebî bikeve ber êrîşa welatên biyanî, ew bi êrîş bo ser cîhana ereb tê hesibandin. Her wiha dê li warê aborî û bazirganî ve zirarê bike, ji ber ku aboriya Tirkiyê ewqas bihêz nine ku bikare şerê dûr û dirêj li derveyî sînor encam bide. Dê nirxa petrolê jî di encama şer de giran bibe û giranî dê bazara Turkiyê dagire û li encam de jî nerazîbûna gel li Tirkiyayê de dê serî hilde. Torîzm jî ku çavkaniya dahata Turkiyayê ye dê kêm bibe. Her wiha Aramî û tenahî jî li Tirkiyê de namîne û ...

**Bi baldan bi dîroka siyasî a gelê Kurd mirov heya çiqas dikare bi hevalbendiya Amerîka û Kurd re piştrast û xatirxcem be?**

Di siyasetê de piştrastbûn û xatircemiya

%100 tune. Tenê mirov bi gelê xwe û xortên gelê xwe re dikare piştrast be. Lê bi dostên derekî re piştrastbûn bi tevahî nine. Bi raya min vê gavê berjewendiya Amerîka û welatên Rojava di Rojhilata Navîn de bi berjeweniyên Kurdan re girêdayî û nêzîk e. Her wiha yek ji stratejiyên Amerîkayê di Rojhilata Navîn de kêm kirin û jinavbirina xeterên li ser gelê Îsraîlê ye û dixwaze di deverê de dostan jêre peyda bike. Îro di Rojhilata Navîn de tenê gelê Kurd e ku tu pirsgirêk û dijberî bi Îsraîlê re nine û berjewendiyên wan nêzîk hev e. Lê piştî seredana Erdoxan û arambûna rewşê, mirov dikare hinekê xweşbîn û carê hêvîdar be.

**Bi raya we helwesta Hikûmeta Herêma Kurdistanê derheq vê rewşê û Kurdên Bakûr, her wiha berevajî wê jî helwesta PKK'ê bi nîsbet destkevt û berjewendiyên Başûr çiqas cihê pesnê û rexnegirtinê ye?**

Helwesta Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi nîsbet Kurdên Bakûr û PKK'ê baş û cihê pesnê ye. Ez bawer im helwest û siyasetek hêja û realîstane girt û li ser du tiştan pê çeqandin. Yekem, Kurd di şerê PKK'ê û Turkiyê de teref(alî) nine. Duyem, em li dijî wê yekê ne ku PKK ji xaka herêmê ve çalakiyên leşkerî li dijî Turkiyê encam bide.

Li ser PKK'ê jî her çend ku berê hin şaşî bi nîsbet Hikûmeta Herêma Kurdistanê û partî û hêzên Başûr kirin û şer bi wan re kir. Lê eva jî rastiyek e ku niha em dibînin hinekê helwest û siyasetên xwe guherîne, nerm dilive, ew 8 rehînên girtî serbest berdan, amade ye bi projeyek siyasî çek û silahên xwe tehwîl bide û bi dewleta Turkiyê re li ser pirsa Kurd gotûbêjê bike.

Bêşik evan helwest û gotarên siyasî yên erênî û baş in û divêt têde berdewam be. Lê ez gellek xweşbîn ninim û renge wekî berê, bi gotin û destûrên Ebdula Ocalan li Îmraliya bin zext û çavdêriya dewleta Tirk de bilivin û destûrên wî birêve bibin. Lê ez bi dil û can dixwazim ku PKK li ser helwestê niha yên xwe berdewam bimîne.

Divêt hemû hêz û aliyek, berjewendî û destkevtên Herêma Kurdistanê biparêzin û nebin hêcetek bo welatên derdor heya ku êrîşê bikin ser herêmê. Bo mînak PDK Îranê çendîn sal e ku xebata xwe ya çekdarî sekinandiye, her ew hêz û qaweta berê jî heye û dikare wekî caran bi başî xebata çekdarî di hundirê Îranê de bike. Lê ya rast ji ber berjewendî, destkevt û ezmûna siyasî a Hikûmeta Herêma Kurdistanê (her çend bi zirara partiyê jî bûye) xwe ji vê yekê parastiye.

**Girêdayîbûna PKK'ê û pirsa Kurd li Tirkiyê bi hev re?**

Di rastî de pirsa PKK'ê pirsa gelê Kurd li Turkiyê ye. PKK û pirsa Kurd li Kurdistana Turkiyê berhema siyasetên şovînîstane yên dewleta Turkiyê ye. Dema ku xwendin, nivîsandin û axaftina bi Kurdî qedexe ye, Kurd ji azadiyên neteweyî yên xwe bêpar in û tên înkarkirin, demografiya welatên wan tê guhertin, tê wê wateyê ku zulm heye, asîmîlasiyon heye û... Lewra xwezayî ye ku li hemberî wan siyasetên qirêj de berxwedan û serhildan çê bibin.

Bi giştî ez vê pirsê bi berhema siyaset û regezperestiya Turkiyeyê ku li ser çar xalan hatiye damezrandin, dibînim.

1. Li Turkiyê de yek netewe bi navê Turk heye.
2. Yek ala heye.
3. Yek ziman bi navê zimanê Turkî heye.
4. Yek dewlet bi navê dewleta Turkiyê heye.

Lewra êdî di wê sîstemê de ne cihê Kurdan, ne nasnameya wan, ne jî cihê çand û kultura wan heye. Di vê derheqê de dewleta Turkiyê heya niha çi ji dest hatibe, texsîrî nekiriye. Lê bi xweşî ve heya niha serneketî ye û vir şûnde jî ser nakeve.

**Helwesta we wekî PSK'ê di vê rewşa hesas a herêmê de çawa bû û hûn çawan ji gel xwedî derketin?**

Me çend caran wekî 12 partiyên siyasî yên Kurd û Kurdistanî yên daxuyaniyên hevbeş weşandin û me piştgiriya xwe ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê li hemberî êrîşên Tirkan da zanîn.

Dîsan me her sê partiyên Kurdistana Bakûr (PSK – PWD û PDK - Bakûr) daxuyanî dan û me ji Artêşê xwest bi Benzînê neçe ser agir, çûnku agir dê geştir bibe û renge wan jî bişewitîne. Bi giştî me amadebûn û piştgiriya xwe ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê li hemû warên siyasî, dîplomasî, leşkerî û aborî da eyanê.

Her wiha me daxwaz ji gel kir ku li bakûr û her wiha li Eworpayê jî xwenîşandan û çalakiyan li dijî siyaseta şerxwaziya dewletê birêve bibin. Hevalên me li derveyî welat heyet şandine bal karbidestên welatên Ewropî û daxwaza piştgirî ji hikûmeta Herêmê ji wan kirin. Bi giştî çi ji destê me hatibe, me encam daye.

**Kek Mesûd çend rojan berî niha projeyek yan ji aliyê Denîz Baykal, Serokê Partiya CHP'ê ve hate dayîn ku hinekê balkêş e. Di halekê de ku bi xwe di biryardana êrîşê de beşdar bûn! Gelo bi raya te dijberî û dufaktebûnek di helwestên wî de nahê dîtin?**

Eva ku em dibînin Denîz Baykal, gihîştiye vê encamê, tiştek baş û balkêş e. Lê çiqas niyetpak û ratbêj be, carê nexuya ye. Ew dibêje rêya leşkerî çareserî nine, divêt em pêwendiyên siyasî, aborî, çandî û dîplomasî yên xwe bi Hikûmeta Herêma Kurdistanê re xurt bikin, divêt em rê û borsiyê bidin xwendekarên Kurd, daku di zanîngehên me de bikaribin bixwînin. Bernameyên me yên Kurdî di radyo û televîzyonan de derheq Kurdistana Başûr hebin. Divêt em sermayeguzariyê li Başûr de bikin û...

Lê ew Denîz Baykalê şovînîst ku hetanî duh dujminatiya Kurdan dikir, niha çiqas rast û niyetpak e, carê xuya nine. Lê renge aqil bibe û ji rastiyên deverê û Rojhilata Navîn têgihîştibe. Yan jî renge jiber hevrikî û dijberiyên di nav hundirê partiya xwe de siyaset û taktîka xwe guhertibe, çunku neyarên şer di partiya wî de zaf in. Yan jî ji ber wê ye ku partiya wî niha, xwe amadeyî girtina kongireyê dike.

**Partiya Kurdî ya legal li Turkiyê (DTP) çend rojan berî niha gavek berbi pêştir hilgirt û dirûşma otonomiyê avêt. Tu vê yekê çawan şirove dikî?**

Berî DTP'ê, 4 salan pêş niha HAK – PAR'ê di kongireya xwe de dirûşma federasyonê avêt û çareseriya pirsa Kurd di Federalîzmê de dît. Lê DTP'ê berê dirûşma demokratîzekirina Turkiyê bilind kiribû û niha jî dirûşma xwe ya stratejîk bi otonomiyê guherand.

**Bi raya te erk û rolê Kurdan bi taybetî Kurdên Bakûr di vê qonaxa hesas a deverê de çi ye?**

Bi baweriya min divêt rêxistinên hemû parçeyên Kurdistanê li gorî rewş û zirûfa parçeyên xwe kar û xebatên xwe bimeşînin. Divêt em rizgarkirina Kurdistana Îranê di stûyê partiyên vê parçeyê de bihêlin û destêwerdanê di kar û barên wan de nekin.

Duyem, pêwendiyên baştir û tekûztir di navberta hemû partiyên Kurd li seranserê Kurdistanê de hebe, vêca çi bi navê bere, kongireya neteweyî û parlemana neteweyî û hwd... be li ser meseleyên giştî, helwestên hevbeş hebin. Derheq Bakûr, divêt rêxistinên Kurdistana Turkiyê giringiyê bidin xebata aştîxwazane, legal, siyasî, çandî û dîplomasiyê. Lê îdeolojiyên cuda nabe bibin asteng li pêşiya yekdengî û yekhelwestiya Kurdan li Bakûr.

Her çend ku xebata legal li Turkiyê jî astengî û nirxên xwe hene, lê maf tê standin, nahê dayîn. Dr. Qasimlo dibêje dema ku miletek daxwaza azadiyê dike, divê nirxa wê azadiyê jî bide.

Siroştî ye ku beramberê me jî vê yekê naxwaze û tim dixwaze Kurd bera xwe bidine çiya û li wir bimînin û şer bikin. Ew naxwazin Kurd di Parlemanê de hebin û di xebata legal, çandî û civaka demokratîk de beşdar bin, lê êdî zirûf hatiye guhertin û tenê bi çiya mesele çareser nabe.

**Turkiyê dixwest bi alozkirina rewşê û vê meselê, pirsa Kurd bi yekcarî ji holê rake, gelo çi destkevt bidest xistin?**

Dewleta Tukriyê bi wê siyaseta şaş a xwe serneket û rewşa Turkiyê û doza Kurd aloztir kir. Kurd zêdetir kete rojeva siyasî ya cîhanê. Turkiye jî di raya giştî a cîhanî de weke dewletek dîktator hate dîtinê. Bi afirandina vê rewşê, Turkiye nikare bibe endamê Yekîtiya Ewropayê û çend merc jêre danîne ku yek ji wan çareserkirina pirsa Kurd e. Lewra dewleta Turkiyê biryara xwe bide ka gelo dixwaze bibe endam yan na? ger bixwaze divêt bi ew meqamê ku Ewropa lêdixe, pê bireqise û govendê bigre.

**Mirov ta çi radeyekê dikare hêvîdar û geşbîn be ku Turkiye dê wan reforman di xwe de pêk bîne?**

Ez gellek xweşbîn im. Bi taybet piştî armabûna nisbî ya vê rewşê. Wan hemû mesele li ser hebûna PKK'ê û lêdana wê asî kiribûn. Lê niha divêt xwe bi tiştên din ve mijûl bike. Tirkiye heta heta nikare bi wan alozî û tengasiyan bijî û divêt pirsên dinê wekî destûra nû, destpêkirina gotûbêjan bi YE'ê û gellek meseleyên din yên civakî û siyasî re çareser bike. Lê ez xweşbîn im ku Tirkiye ji bo endametiya di vê yekîtiyê de neçar e xwe biguherîne, him zext û zorên derve, him sermayedarên Tirkiyê û him ji hêz û aliyên din ku endametiyê di demokratîzekirina Tirkiyê de dibînin, fakterên xweşbîniya min in.

**Di vê navberê de hûn rola Îranê çawan dinirxînin?**

Îran ku di bin zext û zorên derve û navxweyî de ye bo parastina xwe gellek tekoşînan dike, lewra bi hemû awayekê dixwaze pêwendiyên Turkiye û Amerîkayê biqedîne, yan aliyê kêm lawaz bike. Çunku ger Turkiye êrîşê bike, tê wê wateyê ku Turkiye û Amerîka berbirûyê hevdu dibin û di encam de Amerîka bo cîbicîkirina pilanên xwe li dijî Îranê nikare alîkariyê ji xaka Turkiyê bistîne.

Ji aliyê din, heke Turkiye bi niyeta lêdana PKK'ê û parastina Turkmenan êrîşê bike, wê demê Îran jî renge bi hêceta lêdana PJAK'ê êrîşê bike ser başûr û deverê aloz û nearam bike. Bi giştî tirk çiqas li dijî herêmê rawestin, bi qazanca Îranê xilas dibe. Ji ber ku Îran gellek zîrekane dilive û carê li cihê êrîşan konsolan li Hewlêr û Silêmaniyê ava dike. Ew jî ne bona wê ku keyf bi Kurdan tê, ji ber ku dixwaze dilê wan bi dest bîne û li egera êrîşa Amerîkayê bo ser Îranê de, aliyê kêm wan bêalî bihêle û nehêle xaka herêmê bo şer ji aliyê Amerîkayê ve bo şer dijî wan bihê mifah standin.

**Kek Mesûd Tek, Sekreterê PSK'ê spas bo bersivdayînên pirsên me.**

Spas xweş. Ji we re hêviya serkevtinê dixwazim.

**Têdîtin:**

**Naveroka vê hevpeyvînê dîtin û nêrînên birêz Mesûd Tek bixwe ne û ne merc e ku raman û helwestên Rojnameya Agirî bin.**

# Li Osloyê Derheq Dîroka Xebata Simkoyê Şikak, Konferansek Hat Lidarxistin

Roja Şemî, 10.11.2007'an, Konferansa **Serhildana Simkoyê Şikak di sedsala derbasbûyî de**, bi beşdariya dehan kes ji çalakvanên siyasî, civakî û zanistî ên Kurd, li Osloya paytexta Norwejê, hat lidarxistin.

Di destpêka Konferansê de, **Derwêş. M. Ferho**, Serokê Enistîtuya Kurdî ya Brukselê, serbarê îşarekirin bi sedemên pêkanîna Konferansa Simkoyê Şikak, got: niha piştî derbazbûna 77 salan li ser têkçûna serhildana Simkoyê Şikak, hewcehiya nivîsîn û nasîna dîroka bizava neteweyî a Simkoyê Şikak li her demekê zêdetir ketiye rojevê.

Piştre **Ebdula Hicab**, lêkolînvan û çalakvanê siyasî, derheq zirûfa navxweyî, civakî, siyasî û neteweyî a serdemê Şoreşa Simko, basek di bin navê **"Rewşa Civakî û Siyasî ya Kurdistanê di salên serhildana Simkoyê Şikak de"** pêşkêş kir û got: Mezintirîn û girîngtirîn destkevta siyasî a bizava Simkoyê Şikak, parastina nasnameya Kurdistanîbûna herêma Urmiyê bû.

Piştre **Elî Simko**, neviyê Simkoyê Şikak, derheq sedem û çawaniya serhildana bizava Simko û kar û kiryarên Simkoyê Şikak di dema xebatê de axavtinek kir.

Di beşa duyem a Konferansê de, **Dr. Husên Xelîqî**, basek li jêr navê **Şoreşa Meşrûta Îranê û bandora wê li ser Kurdistanê** pêşkêş kir. Navhatî serbarê pêşkêşkirina baseke felsefî û civaknasî, bas ji pêşkevtina pêvajoya Meşrûtê li Îranê û çawaniya serhildana pêvajoya han kir. Dr. Xelîqî piştre bas li ser bandora serhildana Meşrûtê li ser tevgera netewî a Kurd bi taybet li devera Urmiyê û Kirmaşanê kir û îşare bi wan kovar û weşanên derheq vê mijarê, li bajarên Urmiye û Kirmaşanê kir.



Piştre **Dr. Xusro Ebdulahî**, dîroknasê Kurd, basek li jêr navê **Bandora serhildana bizava Simkoyê Şikak di siyaseta navneteweyî** de, pêşkêşî beşdaran kir û îşare bi aliyên cur bi cur ên navneteweyî derheq bizava neteweyî a Kurd li serdemê Simkoyê Şikak kir.

Di beşa dawî a Konferansê de, Elî Simko, basek kurt li ser rewşa jiyana malbata Simkoyê Şikak, piştî şehîdbûna wî, pêşkêş kir.

Hêjayê gotinê ye ku hejmareke zaf ji sazî û kesayetiyên siyasî peyama pîrozbahî û hêviya serkevtinê ji bo vê Konferansê şandibûn ku ji wan Komîteya PDK, YCDK Îranê, YXDK Îranê li Norwejê, Komîteya saziya Çak a Norwejê, Komîteya Kongireya Netewî a Norwejê, Rojnameya Agirî, Komîteya PDK Îranê li Norwejê, Komîteya Hevkarî û Federasiyona Komeleyên Kurdî ên Norwejê û YJDK Îranê bûn.

Konferans bi pejirandina biryarnameyeke 5 madeyî derheq bandora netewî a bizava Simkoyê Şikak, dawî pê hat.

## Neteweyên Yekbûyî Roja 15'ê Îlonê Weke Roja Navneteweyî A Demokrasiyê Ragihand

Roja 8'ê Çiriya Paşîn a 2007'an, Civata Giştî a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî roja 15'ê Îlona hemû salekê weke **Roja Cihanî a Demokrasiyê** îlan kir û li ser berdewambûn, haydan û berfirehkirina demokrasiyê, pêşdebirin û parastina mafê mirovan û azadiyên bingehîn tekez kir.

Di biryarnameyekê de ku Almaniya pêşniyar kir, 192 endamên Rêxistina Neteweyên Yekbûyî tekez kirin ku demokrasî xwediyê taybetmendiyên hevbeşe û mînak û berjengek taybet li demokrasiyê tune û demokrasî ya çi welat û herêmekê nine.

Ji bilî vê çendê Civata Giştî a NY dubare tekez kir ku demokrasî biha û pirensîpek cîhanî ye û ji azadiya raderbirînê, daxwaz û vîna xelkê ji bo diyarîkirina sîstema siyasî, aborî, civakî û kulturî a xwe û beşdarî di hemû warên jiyanê pêk tê.

Civata Giştî ya NY ji hemû welatên endam, saziyên girêdayî RNY, rêxistinên navneteweyî û navçeyî û ne dewletî (NGO) û tekekesan vedixwîne ku ji bo nasandina vê rojê û jêrdebirina zanyariyên giştî bi awayê herî baş bixebitin.

Sazûmana Giştî a Neteweyên Hevgirtî herwiha biryar girt ku di sala 2008'an de, bîstemîn salvegera lidarxistina Konferansa Navneteweyî a Demokrasiya nû pîroz bike û dê



derfetek ji bo balkişandina bi ser teşwîq, haydan û pêşdebirin û xurtkirina demokrasiyê di hemû asta cîhanê de bibe.

NY ji dewletên cîhanê dixwaze ku bernameyên netewî ji bo pêşvebirin û xurtkirina demokrasiyê ji rêya hevkariya dualî, herêmî û navneteweyî bigirin pêşberî xwe. Herwiha Civata Giştî ji Sekreterê Giştî yê NY dixwaze ku şiyan û îmkanên Neteweyên Yekbûyî ji bo bersivdayîna bibandor bi pêwîstiyên welatan ji rêya piştgirî ji cehd û xebatên wan bi armanca cihgirkirina demokrasiyê xurt bike û bi kar bîne.

### Doma nivîsara rûpela 2

endamên Komîteya Navendî – (6 kes ji 23 kes) – cuda dibin, ne Partiya Demokrat in.

3.Her ji ber van sedemane û gellek yên din ku ji ber dirêjnebûna gotarê, ez li baskirina wan xwe diparêzim, destbiserdegirtina navê Partiya Demokrat ji aliyê wê girûpê ve yê bûye sedema vê çendê ku têkiliya navbera wan duyan sar bibe. Eva di demekê de ye ku heya niha pirr warên fikrî û dîrokî ku me bi hev re hebûne, dikaribe helqa pêwendiya navbera me xurt û bihêz bike. Diyar e ew nave her eva nîn e ku pêwendiyên sar di navbeyan me de pêk aniye, belkî dikare bibe kosp û astengek li ser rêya bi hev re alîkarîkirin û nêzîkbûna me tevî hêzên din yên siyasî ên Kurdên Opozîsyona Îranê, ku ji niha ve renge bêtir ji berê hevkarî û ji hev nêzîkbûna wan hewce be.

Divê niha ji bo her yek li Kadro, Pêşmerge û endamên rêberiya aliyê cudabûyî ev pirse derkeve holê ku gelo hilgirtina wê kospê bi diyarîkirina naveke din xizmetê bi tevgera Kurd û pêşdeçûna wan du aliyan dike, yan biîsrabûn û pêçeqandina demargirjane li ser parastin wî navî? Her di vê derbarê de eva jî cihê pirsê ye ku bi çi tiştekê re diyar û xuya dibe ku heke navê xwe kirin bi Partiya Democrat, bi rastî dê bibin Partiya Demokrat? Ewa nîn e ku her du taqimên berê jî nebûn.

Lewra em li ser vê baweriyê ne ku çêtir bû her li roja piştî cudabûna xwe naveke din ji xwe re diyarî kiriban, ji bo ku ew tundî û girjiyên di vê midehê hatine pêş, pêk nehatiban, lê bila niha jî çavê me ji pêşerojê re be û em li benda vê yekê bin di kongreyekê de ku van zûyane tê lidarxistin, vê astengê li ser rêyê rakin. Em agahdarê vê çendê jî hene ku hin kes li rêberî û bedeneya wê taqimê hene ku ewa ku lê difikirin, hesta tolhildan, demargirjî û tund û tûjî ye. Lê em hêvîdar in ku şîrove, berhevdan û berjewendiya tevgera me bi ser tengfikirîn û teskdîtina wê beşê de zal be û encama kongreyê di vî warî de ji bo rakirin û nehêlana wê kosp û astengê alîkar be, nemaze ku di beşek ji daxuyaniyekê de ku bi boneya dawîhatina Pilînoma xwe ku bervara 03.11.2007'an li ser de ye, nivîsandine, "… di vê raporê de [armanc raporek e ku pêşkêşî Pilînomê hatiye kirin] girîngiya taybetî bi hewcehiya ji hev nêzîkbûn û hevgirtina navbera hêz û rêxistinên Opozîsyona Komara Îslamî di asta Rojhilatê Kurdistanê û Îranê de hatibû dayîn … ." her di vê derheqê de li ciheke din a heman daxuyaniyê de hatiye: "Raporê qala xwestek û çavnihêriyên endamên partiyê bi taybetî û xelkê Rojhilatê Kurdistanê bi giştî ji partiya me û hêz û rêxistinên din ên nav tevgera Kurdistanê kiribû ku hewildan ji bo pêkanîna hevgirtinekê di navbera wan rêxistinan de yek ji wan e."

Xezelwera 1386

**Eva nivîsara mahane ya Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ye ku di malpera www.sikirter.org de hatiye weşandin.**

# Xelata Nobelê

**Amadekar: Şehab Xalidî**
**mencel_senger@yahoo.com**

Alfired Nobel di 21.10.1833'an li bajarê Stokholmê hate ser rûyê dinê. Wî li tevaya jiyana xwe bi taybetî di 15 salên dawiyê de ji destê nesaxiyê de dinaland. Wî bi sedema hejarî û destengiya malbata xwe ji çend salan zêdetir nekariye dersê bixwîne û xwandina li zanîngehê nebûye para wî. Lê Nobel serbarê xwandina kin, karî li ser yek 355 afirandinan (dahênanan) di welatên cuda ên cîhanê de pêşkêşî mirovahiyê bike. Di sala 1863'an de bi sedema xizmetên bi nirx ên vî zanayî, zanîngeha mezin a Swêdê pileya dukturaya pesn û şanaziyê di kulîja Kîmiyayê de pêşkêşî wî kir. Mixabin Alfired Nobel li 10.12.1896'an li bajarê Sanmu li welatê Îtalyayê de bi sedema xwînrêjiya mejî jiyana xwe ji dest da.

Alfired Nobel li meha Çiriya Pêşîn a sala 1895'an wesiyetnameya xwe bi pênûsa xwe li welatê Swêdê û li hizûra çar kes ji gewahyarên(şahid) Swêdî de nivîsand ku deqê wê bi vî awayî ye:

"Ez Alfired Nobel ku min ew wesiyetnameya îmze kiriye, piştî bîrkirineke zaf hatme ser vê baweriyê ku dawî wesiyeta min li derbarê vê mîratê (mîrasê) ku piştî mirina min, ji min bi cih dimîne bi vî awayî be:

Ew mîratê ku ji min bi cih dimîne, hemiyê bikin diravê neqdî û wek sermaye li sazî û navendên xwedîhitbar de danên. Ew dirav dikare her tim sermayeyekî sabit hebe. Qazancê wê sermayê hemû salê wek xelat bidin wan kesan ku bi awayên herî baş xizmeta mirovahiyê kiribin. Helbet wê dahatê bi pênc beşên wekhev bi vî awayî parve bikin: beşekê bidin wî/ê kesî/ê ku "keşf" an jî afirandin (dahênan)a herî giring di warê Fîzyayê de kiribe. Beşekê jî bidin wan kesên ku di warê Kîmyayê de "keşf" an jî afirandinek kiribin. Beşekê jî bidin yên ku "keşf"a herî giring li warê "Tib" an jî "Fîzyolojî"yê de kiribin. Beşekê bidin kesekî/ê ku xwediyê berhema herî dewlemend di warê wêjeyê de be. Beşekê bidin kesekî ku cehdekî zaf kiribe bona qahîmkirina têkiliyên bi biratî li navbera neteweyan û kêmkirin an jî hilweşandina arteşekê, an zêdekirina civatên aştiyê.

Xelata Fîzya û Kîmîyayê ji aliyê akademiya Zanist li Stokholmê, xelata Fîzyolojî û Pijişkî ji aliyê Navenda Pijişkî û Cerahiyê ya Karulîn li Stokholmê, xelata Wêjeyî ji aliyê Navenda Çandî a Stokholmê û xelata Aştiyê divê ji aliyê komîteyekî pêkhatî ji pênc kesan ku ji aliyê parlemana Norwejê ve hatibne hilbijartin, bihê dan. Bi baweriya min parvekirina van xelatan nabe li ser bingeha miliyetê be. Divê xelat bi kesên kêrhatî bihê dayîn, îca çi xelkê Skandînaviyê yan jî xelkê cihekî din bin.

Eva tenê wesiyetnameya xwedîhitbar a min e. Naveroka vê wesiyetnamê her wesiyetnameyeke din ku bi navê min bihê nivîsandin ret dike."

Parîs 27.11.1895 Alfired Nobel

Piştî vê wesiyetnameyê gellek rexne ji Nobel û wesiyetnameya wî hatne girtin. Herweha hinek aliyan Nobel bi dûr ji hesta welatparêzî dizanîn. Lê di encamê de bi biryara dewletê û bi avakirina Navenda Nobel bo rêvebirina wesiyetên wî, bi awayekî yasayî wesiyeta wî cî bi cî bû.

Navenda Nobel di sala 1900'î de bi awayekî fermî dest bi kar kir û mîratê (mîrasê) wî di welatên cur bi cur de kom kirin û kirne dirav, ku li ser yek kire 58.700.000 kirun. Dahata wê jî salê 480-



830 hezar kirunî, kêm û zêde dike. Eva sermaya herî zaf e ku heya niha ji aliyê kesekî ve bo xizmeta bi zanistê hatibe danîn.

Dana Xelata Nobel bi rê û resmeke taybet ji sala 1901'an pêde heya niha hemû salê li 10'ê Çileya Pêşîn ku roja mirina Nobel e, li welatên Norwej û Swêdê berdewam birêve diçe û heya bi çêbûna şerê yekemîn û dûyemîn ê cîhanî jî, ew rê û resm nehatin ragirtin.

Herweha hewce ye ku em li vir qala vê çendê jî bikin ku "Civata dostên gelê Kurd" roja 31.09.1989'an di civîna xwe de bi dengê giştî biryar da ku şehîdê nemir Dr.Qasimlo ji bo wergirtina xalata sala 1990'î a Nobelê di warê aştiyê de, bi




"Komîteya Xelata Nobelê a Aştiyê" bide naskirin.

Van kesayetiyên jêrîn piştevaniya xwe ji berendametiya şehîd Dr.Qasimlo bo wergirtina xelata Nobelê ragehandin:

- Li Otrîşê 7 Pirofesor û 16 nûnerên Parlemantoyê
- Li Îtalyayê 11 Senator û nûnerên Parlemantoyê
- Li Çekislovakya pêşîn 4 Pirofesor ku yek ji wan nûnerê Parlemantoyê bû
- L Almanyaya Rojava a wê demê 2 nûnerên Parlemantoyê
- li Îslandê 1 Pirofesor

Her çend xelata sala 1990'î bi Gorbaçof hate dayîn, lê her eva ku Dr. Qasimlo wek yekemîn Kurd û yekemîn Îranî, di refa kesayetiyekî wek Gorbaçof de ku serdemê xwe rêberê yek ji welatên herê mezin ên cîhanê bû, û helwestên wî dikarîn li ser berhevdanên herêm û cîhanê xwedî bador bin, bû berendam, ciyê şanaziya her Kurdekî welatparêz e.

## Li Me Biborin

**Di hejmara berê a Agrî(74) de 2 şaşiyên teknîkî di rûpela3 û 10 de çê bibûn. Em tevî daxwaza lêborînê ji we rêzdaran, bi vî awayî wan çewtiya serrast dikin.**

1. Di nûçeya "Dema ku Taqima Mela Hesen Restigar Li Ser Navê PDK Îranê, Daxwaza Peyamê Ji Bo Kongireya Xwe Dikin!" hêla yekem a paragrafa yekem ji ber pirsgirêkek teknîkî cî ketibû, nehatibû ku bi vî awayî ye:

Piştî vê çendê ku Partiya Komonîst a Firansayê li ser daxwaza taqima Mela Hesen Restgar, li ser navê PDK Îranê peyama pîrozbahiyê ji bo Kongireya wan –ku renge di pêşerojê de pêk were-dişîne...

2. Li rûpela 10'ê, di bin wêneyê Arjen Arî de wiha hatibû nivîsandin: "Kek Keyo, Kurê Seyda Cegerxwîn". Ew wêneyê Arjen Arî bû, ne Kekê Keyo.

Em spasiya malpera Diyarnamê dikin bona agahdarkirina me ji vê şaşiyê.

Tevî rêzû hurmetan...

**Desteya Weşana Agirî**

# Tûşbûna Berfireh Bi Îdzê Û Cinayet Li Dijî Mirovahiyê

**Amadekar/ Baran**
**Wergerandin/ Hemîd Muxtarî**

Li gor rapora çavkaniyên ciyê baweriyê, nêzîk bi çendîn malbatên tûşbûyî bi nexweşiya Îdzê(HIV), li bajarên din yên Îranê bo bajarê Ciwanroyê hatine şandin û di vî bajarî de akincî bûne. Tê gotin berpirsên rejîma desthilatdar di Îranê de ji ber tûşbûna van kesan bi nexweşiya Îdzê agehdar in û ji wan bona tûşkirina xelkê Îranê bi nexweşiya Îdzê û madeyên sirker û karên bêexlaqî mifahê werdigire. **Wîkîpedya**, bi vî awayî pênaseya nexweşiya “HIV”’yê dike: bi Îngilîzî AIDS yan (Acquired Immune Deficiency Virus) bi wateya nîşaneyên hebûna lawaziyên di sîstema berevaniya laşê mirov de ye. Ew yeka jî rê ji bo îfûnetên(Çilk) bi navê derfetperest xweş dike ku di rastî de laşek saxlem dikare wan ji nav bibe û di encam de bihêzbûna û berfirehbûna îfûnetên han dibe sedema mirina kesê/a nexweş. Bi awayekê ku nexweşiya Koqizîtî(Tuberosity) sedema sereke a mirin di nava kesê/a tûşbûyî bi “HIV”yê, li gişt cîhanê ye.

Li herêma Rojhilata Navîn û Bakûra Afrîkayê û welatên weke Îran, Cezayir, Lîbya û Merakêşê, tirsa tûşbûn bi vîrûsa Îdzê di asteke bilind de ye. Li gor sehejmariyên fermî û tomarkirî ên Wezareta Tendurustî ya rejîma Komara Îslamî a Îranê, heya meha Çiriya Paşîn a sala 2007’an, 14 hezaer û 544 kes tûşî nexweşiya “HIV”yê bûne û hatine destnîşankirin. Li gor gotina Mihemed Mêhdî Gûya, berpirsê Binkeya Birêvebriya Nexweşiyên Wezareta Tendurustiyê, serhejmariyên texmînî didin xuyakirin ku nêzîk 70 hezar kes tûşî nexweşiya han bûne. Bi liberçavgirtina nifûsa 70 milyonî a Îranê, em dikarin bibêjin ku di nav her hezar kesan de kesek tûşî nexweşiya Îdzê bûye. Têkiliyên zayendî tevî kesên tûşbûyî bi nexweşiya “HIV”yê, bikaranîna alavên pîs û nepaqij ên derzî lêdanê di nava kesên tûşbûyî bi madeyên sirker, dana xwîn û berhemên xwînî ên pîs ji dayîka tûşbûyî bi zarokê/a xwe, ji rêyên herî girîng ên tûşbûn bi îdzê tên hesibandin. Li gor serhejmariyan, bikaranîna alavên pîs ên derzî lêdan di nava kesên ku madeyê hişber dikişînin û herwiha têkiliyên zayendî de, weke yekemîn û duyemîn rêyên tûşbûn bi vîrûsa îdzê di Îranê de tê hesibandin. Li gor serhejmariyên li asta jor ên derheq têkiliyên zayendî û kesên tûşbûyî bi madeyên sirker û... wisa xuya ye ku hejmara kesên tûşbûyî bi nexweşiya han zêdetir ji 70 hezar kesan be. Ew rêyên ne eşkerebûyî ên tûşbûn bi nexweşiya Îdzê gellek ji wan rêyên eşkerebûyî bitirstir e. Çimku çawaniya nêrîna bi ser kesên




tûşbûyî bi Îdzê di Îranê de, ne nêrînek ji ber berlêgirtinê pêşgirane ye û weke nexweşiyekê nahê hesêb. Kesên tûşbûyî bi nexweşiya han di civakê de weke tawanbar tên mêzekirin. Lewra bi raya xelkê Îranê kesên tûşbûyî bi nexweşiya Îdzê divê ji civakê bên dûrxistin û ev nêrîna jî dibe sedema wê çendê ku kesên tûşbûyî xwe nedin eşkerekirin û eva jî dibe sedema jordeçûna asta nexweşiya han di civakê de.

Ji aliyekî din ve xelkê Îranê bi awayekî giştî û bi taybetî ciwanan derheq çawaniya pêkanîna têkiliyên zayendî ne xwediyê zaniyariyek pêwîst in. Zêdebarê vana, bertenegkirina pêwendiyên zayendî, ji sedemên girîng ên tûşbûna ciwanan bi nexweşiya Îdzê tê hesibandin. Weke em asta kesên bêkar, xizanî û belengaziya berfireh, feqra çandî, bêmeraqiya di nava ciwanan de û... zêdeyî vî nexweşiyê di Îranê de bikin, wê demê xuya dibe ku hewce ye tirsa micid a tûşbûn bi nexweşiya Îdzê û rêyên tûşbûn bi vî vîrûsê, ji xelkê re were gotin û xelk ji van pirsan werin agehdarkirin.

Komara Îslamî a Îranê ne tenê di çarçoveya pêşîgirtin ji belavbûna nexweşiya Îdzê de tu pêngavek ne avêtiye, belku hinek caran – ku mînakên wan di Kurdistanê de gellek in – bi belavkirina nexweşiya “HIV”yê di civakê de hewlê dide civakê ji nav bibe.

Veguhastin û akincîkirina çendîn malbatên tûşbûyî bi nexweşiya Îdzê li bajarê Ciwanroyê dibe weke beşek ji terhên dewletî ên birêveçûyî di Îranê de were hesibandin. Encama vê pirosesê cinayet li dijî mirovahiyê ye.

Cinayet li dijî mirovahiyê bi awayekî giştî kar û kiryarên dewletî ne ku di çarçoveya ji navbirina hejmarek ji xelkên xwediyê taybetmendiyên wekhev in ku xwediyê du xalên eşkerec û cudabûyî ên bigehîn di cinayetên şer de ye. Di dema aştiyê de jî egera bikaranîna vê terhê li dijî hevwelatiyên vî welatî heye. Niha li gor vê yekê, ev kiryara rejîma desthilatdar bi ser Îranê di çarçoveya akincîkirina çendîn malbatên tûşbûyî bi vîrûsa Îdzê li bajarê Ciwanroyê cinayet li dijî mirovahiyê nahê hejmartin, nirxandin.

Berbirûbûn tevî siyaseta gemar û nemirovî a belavkirina “HIV”yê ji aliyê rejîma Komara Îslamî di nava xelkê Îranê de, hewcehî bi eşkerekirina siyasetên rejîma han û belavkirina zaniyariyên derheq çawaniya pêşîgirtin ji tûşbûn bi nexweşiya Îdzê heye.

Binkeya Gehandina Zanyariyên derheq “HIV”yê, li berçavgirtina xalên jêrîn derheq parastina mirovan ji nexweşiya Îdzê bi hewce dizane:

Emegnasbûna mirovan bi hevjînên xwe û pêbendbûn bi pirensîpên sincî. Xwe parastin ji kişandina her cure madeyên bêhişker bi taybetî curê derzî lêxistinê. Mifahwernegirtin ji ampûl(derzî) û tîxên bikarhatî. Dehn û balkişandina li dema mifahwergirtin ji derzî yan her alavekê bona xwînê. Ravêjkarîkirin tevî kesên pispor bona jordebirina asta zanyariyên xwe li dema hebûna riftarên ciyê tirsê.

## Di Heyamê 6 Mehan De Pitir Ji 13 Hezar Kes Di Rêyên Îranê De Tên Kuştin



Berpirsê Saziya Nojdarên Yasayî a rejîma desthilatdar di Îranê de ragehand ku di 6 mehên pêşîn ên îsal de pitir ji 13 hezar û 584 kes, di encama bûyerên hatin û çûnê de jiyana xwe ji dest dane. Wî herwiha got: li gor serhejmariyên herî dawîn, di 6 mehên borî de, 964 kesdi nava avê de xendiqîne û canê xwe ji dest dane. Di nava wan de 824 kes mêr û 140 kes jî jin bûne. Serhejmariyên han bi berhevdan tevî vê heyamê di sala borî de ku 889 kes bû, %7/2 jorde çûye.

Welatê Îranê bi sedema kêmxemiya karbidestên rejîma Komara Îslamî a Îranê bona çêkirina rêyên hatin û çûnê, derheq mirina kesan di bûyerên hatin û çûnê de di nava welatên cîhanê de di refa herî jor de ye. Hêjayî gotinê ye ku her sal bêtirî 430 hezar kes di bûyerên hatin û çûnê de tên kuştin yan birîndarkirin.

**Jêder: “iranpressnews”**.

# Efûya Navneteweyî: "Çalakên Mafê Mirovan Ên Kurd Tevî Tirsa Girtinê Berbirû Ne"



Saziya Efûya Navneteweyî, derheq nerazîbûnê ji rewşa Mihemedsidîq Kebûdvend û pêkanîna zext û givaşan bo ser şanda Rêveber ya Rêxistina Parastiana Mafê Mirovan li Kurdistanê, ji aliyê rejîma Komara Îslamî a Îranê, daxuyaniyek çapemeniyê weşand.

Saziya Efûya Navneteweyî di daxuyaniyekê de, nerazîbûna xwe derheq çawaniya ragirtin û livîna di zîndanê de tevî Mihemedsidîq Kebûdvend, serokê Rêxistina Mafê Mirovan li Kurdistanê da xuyakirin. Di vê daxuyaniyê de Efûya Navneteweyî derheq vê çendê ku zextên han, ji bo binçavkirina endamên din ên saziya "RMMK"ê werin meşandin, nigeraniya xwe diyar kir.

Di daxuaniyê de hatiye ku hêj bi awayekî fermî tu buxtanek ji ber Kebûdvend nehatiye ragehandin, lê tê gotin ku buxtanên lêdayî bi wî ev in: "Xebat li dijî tenahiya netewî û dileqandin û şaşkirina raya giştî û hevkarî tevî girûpên neyar ên rejîmê". Li gor daxuyaniya saziya Efûya Navneteweyî, birêz Kebûdvend nerazîbûna xwe ji rewşa heyî di girtîgeh de daye xuyakirin û gotiye ku bi çav û dest û pêyên girtî, lêkolîn jê dikin. Her wiha Efûya Navneteweyî di vê daxuyaniyê de, nerazîbûna xwe derheq vê çendê ku rejîma desthilatdar destûr nedaye ku Mihemedsidîq Kebûdvend bi parêzvanê xwe re anku xatûna Şîrîn Ebadî re hevdîtinê pêk bîne, daye xuyakirin.

Mihemedsidîq Kebûdvend gotiye ku ji nexweşiya zexta xwînê dinale. Her wiha ew tûşî nexweşiya çermî û nexweşiya gurçîkan jî hatiye.

Efûya Navneteweyî di daxuyaniya han de daye zanîn ku tu agahî ji cura nexweşiya gurçîkan a birêz Kebûdvend tune, lê bona xwe parastin ji nexweşiyê, divê hevdem here ser avê. Li gor nivîsîna Efûya Navneteweyî, ew her carê ku bixwaze here ser avê, divêt daxwaza nivîskî binivîse.

Her wiha di vê daxuyaniyê de hatiye ku ji birêz Kebûdvend re hatiye ragehandin ku ger sê kesên din ji endamên Şanda birêveberiya saziya "RMMK"ê, xwe bi Îdareya Ewlekariya bajarê Sine bidin nasîn, ew dikare bê îzna nivîskî, here ser avê.

Efûya Navneteweyî ji vê çendê ku renge zextên han ji bo binçavkirina endamên vê saziyê bihên kirin, nerazîbûna xwe daye xuyakirin û gotiye ku bi karê han, saziya Mafê Mirovan ya Kurdistanê, bi fermî tê daxistin.

Mihemedsidîq Kebûdvend di sala 2005'an de saziya han ava kiriye û niha xwediyê pitir ji 100 endaman e.

Wî ku her ji despêka avabûna vê saziyê ve, serokatiya wê listû girtibû, nekarî ji bo birêvebirina çalakiyan derheq mafê mirovan li Kurdistanê, îcazenameyê ji rejîma Komara Îslamî a Îranê wergire. Ev roja 01.06.2007'an, hate girtin û ji wê rojê şûn de di girtîgeha Êvînê de ye.

Îclal Qewamî, yek ji endamên şanda birêveberiya vê saziyê, bi buxtaneke din ku pêwendî bi çalakiyên wî ên çapemeniyê heye, di girtêgeha bajarê sine de ye

Saziya Efûya Navneteweyî daxwaz ji desthilatdarên rejîma Komara Îslamî a Îranê kiriye ku zirûf û îmkanên xebatê ji bo Rêxistina Mafê Mirovan li Kurdistanê pêk bîne û serokê vê saziyê ku niha di zîndanê de ye, serbest berde.

# Zext Û Givaşên Hêzên Ewlekarî Ên Rejîma Komara Îslamî A Îranê Bo Ser Çalakên Mafê Jinan Li Kurdistana Îranê Ber Bi Zêdetirbûnê Diçe

Roja yekşem, 04.11.2007'an, xatûna **Hana Ebdî**, ji aliyê hêzên ewlekarî ên rejîma Komara Îslamî a Îranê, li bajarê Sine, di mala bapîrê xwe de hate gitin.

Hana Ebdî, keça Kurd a 21 salî, xwendekara rişteya derûnnasî û yek ji endamên çalak a Kampayna Yek Milyon Îmzeyan e. Piştî binçavkirina Hana Ebdî, hêzên Ewlekarî ên rejîma Komara Îslamî a Îranê kêysa kumpyoter û her wiha belgenameyên çalakiyên kampaynê tevî xwe birin.

Heyamekê berî niha li bajarê Sine, çalakeke din a Kampayna Yek Milyon Îmzeyan bi navê **Ronak Sefarzade** ji aliyê hêzên rejîmê hate girtin û niha jî di rewşeke neron de ye.

Li doma zext û givaşên hêzên rejîma Komara Îslamî a Îranê bo ser jinên mafxwaz ên Kurdistanê, Nûçegihaniya Rêxistina Parastina Mafê Mirovan li Kurdistanê, ragehand ku roja çarşem, 31.10.2007'an, xatûna Niştîman Ehmedî, yek ji çalakên warê çandî û akinciyê bajarê Sine ji aliyê hêzên Ewlekarî ên vî bajarî ve hatiye binçavkirin. Rapora Rêxistina "RMMK"ê, basê vê çendê dike ku hêj sedemên girtina xatûna Nîştiman ne zelal e.

Her di vê derbarê de, Ajansa Nûçegihanên "Mukriannews"ê eşkere kir ku tayê yek a Dadgeha Şoreşa Îslamî a bajarê Seqizê, xatûna **Çinûr Fethî**, nivîskar û wergêra Kurd bi zîndanê mehkûm kiriye.


Hana Ebdî

Jina xebatkar a Kurd, Çinûr Fethî, li gor madeya 499 a yasay cezayî a rejîma desthilatdar di Îranê de bi tawana endambûn di yek ji partiyên siyasî ên Kurd de bi 5 sal cezaya girtîgehê "tezîrî" hatiye mehkûm kirin.

Hêjayî gotinê ye ku zetx û givaş, girtin û îşkencekirina jinên çalak li gişt Îranê û bi xasmanî li Kurdistanê, bi sedema xebat û tekoşîna aştîxwazane û mafxwazane ên wan, rastî rewşeke nû a serkut û tepeserkirinan hatiye.

Bêşik rewş han ne tenê nabe sedema tirsandina van xebatkaran, belku ew li ser maf û daxwazên xwe zêde biîsrar dibin.

# Jinek 19 Salî Li Devera Tirgewer A Ser Bi Bajarê Urmiyê Xwe Dişewitîne

Çend rojan berî niha jinek bi navê **Azer Terbî**, keça Mudîr Terbî li gundê Enbê ser devera Tirgewer ya bajarê Urmiyê, bona xuyakirina nerazîbûna xwe derheq tûşbûna hevjînê xwe bi madeyên hişber, xwe dişewitîne û piştî çend roja jiyana xwe ji dest dide.

# ÇANDA KEDÊ



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Dîroka mirovahiyê, dîroka kedê ye. Jiyan bi kedê dest pê dike, bi kedê didome û bi kedê bi dawî dibe. Ango jiyan bi kedê û ked bi jiyanê ve girêdayî ye. Di navbera herdu têgînan de pêwendiyeke xurt û watedar heye. Bizava mirov a sereke ya li hemberî xwezayê ked e. Tu tiştê bê ked nehatiye/nayê afirandin. Belê tiştê ku bûye/dibe egera kedxwarî û kedkariyê jî dîsa ked bi xwe ye. Bi kurtayî, pêwendiyên navbera mirov û civakê, yên mirov û dîrokê û mirov û xwezayê hemû li ser xîmê kedê hatine avakirin. Ked, hêza diyarker û kilîda hemû deriyên jiyanê ye. Jiyan û ked bûne wekî nenûk û goşt. Herdu bi hevûdin hatine kelijandin. Ne pêkan e ku tu hêz dikaribe wan ji hev û din biqetîne.

Tiştên ku mirov serbilind û payeberz dikin, hemû bi saya kedê bi dest dikevin. Ked, tiştekî wisa pîroz û nirxdar e ku di riya wê de gellek tişt têne kirin û fedakirin. Keda mirov, rûmeta mirov e. Kesê/a ku li keda xwe xwedî dernekeve, nikare bibe xwedî hêz û xwedî vîn. Tu mirovê/a xwedî hiş û xwedî raman nikare keda xwe bi avê de berde an jî bihêle ku hinek rabin keda wî /wê bixun. Lêxwedîderketina kedê, nirxdayina jiyanê bi xwe ye. Ên ku ji jiyanê hez dikin, dikarin tevê keda xwe di riya wê de xerc bikin û heta dikarin canê xwe fedayî wê bikin.

Ji do heta îro, şer û pevçûnên navbera mirov û civakan de hemû li ser kedê ye. Wekî ku me li jorê jî got, kedê li ser rûyê erdê du nifş mirov afirandine: Yek jê mirovên kedkar û ya din jî mirovên kedxwar e. Şer û lêqewmînên cîhanê hemû di navbera van herdu hêzan de derdikeve û xuya ye dê hê derkeve jî. Şerê ku bi destpêka civakîbûnê de di navbera van herdu hêzên dijber de derketiye bê rawestan didome û xuya ye dê hê jî bidome. Îcar wekî ku tê zanîn, bi derketina şerê navbera van herdu hêzan re du çandên bingehîn yên mirovahiyê derketine holê: Ew jî , yek çanda kedkar û ya din jî çanda kedxwar e.

Çanda kedkar, xwe li gora merc û derfetên demê, hewl dide ku pergala kevneperest û kevneşopiya statûkoparêz birûxîne û li dewsa wê pergaleke ku mirovan bi yeksanî birêve bibe ava bike; çanda kedxwar jî ji bo ku têk neçe û pergala xwe ya kedxwar misoger bike, bi hemû merc û derfetên xwe êrîşî kedê û her wiha hêza kedkar dike. Ev pevçûn û şerê domdar bi hezaran sal e didome û xuya ye dê hê jî bidome. Lewre herdu hêz jî xwe mafdar dibînin û ji ser a xwe nakevin. Ev herdu hêzên şer ên ku vî şerê bê navber û bê deman didomînin, her yek ji wan xwe, xwe xwedî maf dibîne û dîsa her yek ji wan bi xwe re, bîrdoz, feraset, raman, ramyarî, çand, huner, wêje, kevneşopî, sinc û têkildariyeke cuda pêk tîne. Ev herdu çand an kevneşopî jî bi xwe re kesayetiyên cuda diafirînin. Çi ne ev çand an jî kevneşopiyên domdar ên dîrokî? Yek, çanda pejirandî, a din çanda red e.

Çanda pejirandî statukoparêz û paşverû, belê ya red serhildêr û rexnegir e. Kesayetiyên çanda pejirandî, nirxê nadin kedê. Ew bixwe, an kedê dixun an jî xwe didine xwarin. Ango, an ew bi xwe kedxwar in an jî bi kedxwaran re hevkariyê dikin. An kedkaran didarizînin, an jî gilî û sîxurtiya kedkaran dikin. Hin ji wan bi xwe karker û kedkar in, belê dijminatiya çîna xwe dikin. Ên ku çanda pejirandî diparêzin, bê vîn in, armana wan nîn e, tenê bi tevger û bizavên xwe(Ji aliyê fîzîkî de) dişibine mirovan. Ew xwediyê kesyetiyeke dîl û dardest in. Li hemberî hemû nûjeniyan derdikevin. Kevnperest in. Girtî û nixumandî ne. Ji ber ku bi xwe ne ewle ne bi tu kesan jî ewle nabin. Alternatîfa wan nîn e. Tenê dipejirînin.

Çand û huner û wêje û her wiha kevneşopiyên wan hemû di xizmeta kedxwariyê de ne. Ew bi xwe wekî alaveke hilberînê an jî alaveke çîna kedxwar têne xebitandin. Belê yên ku çanda red diparêzin, li keda xwe xwedî derdikevin. Li hemberî kedxwaran şer dikin. Fikr û ramana xwe ji merc û derfetên jiyanê ji têkiliyên gerdûnî werdigirin. Bi vîna xwe tevdigerin. Xwediyê vîneke azad û ramaneke zanistî ne. Xwediyê ferseteke gerdûnî ne. Dixwazin ji bo xwe û serbixwe bijîn. Hewldanên wan bo vê yekê û di xizmeta vê yekê de ne. Dijminahiyê bi xwe re nakin. Bi xwe re, bi neteweya xwe re bi civaka xwe re, bi jiyan û cîhana xwe re li hev in. Ne ku her tiştî red dikin, ji ber ku xwarî û kedxwariyê red dikin, xwediyê çandeke redparêz in. Ji ber ku kevneparêzî û kevneperestiyê red dikin ew redparêz têne pejirandin.

Îro şerxwazî, pevçûyîn, kujerî, îxanet, fesadî, xeyidandin, pest û kotek û çewisandin, îşkence, kîn û rik û li aliyê din jî aştîxwazî, mirovhezî, azadîparêzî, niştimanperwerî, demokrasî, rêzgirtin û hezkirinên ku di navbera mirovan de didome, li ser van herdu hîman bilind dibin. Divê mirov ji van herdu çandanyekê bipejirîne û ya din jî red bike. Lewre herdu bi hev re nameşin.

## Pexşan

# Bo Urmiya Delal



**Elî Munezemî**

Urmiya delal!

Navê te yê pîroz, nîşana dîroka te ya dirêj û bi xwînê xemilî ye. Xweştevîbûna te ji ber li dayîkbûna rêber û azadîxwazê mezin e li himbêza te ya germ de. Bêhna te ya xweş ji ber şînbûna gulên kesk û sor û zer e ku deşt, çiya, mêrg, çîmen û zozanên te xemilandine.

Bajarê me yê şirîn!

Tu bala xwe bidê, ev dijminê ku dixwast te û gelê te ji holê rake, tenê rûreşî jêre maye. Ji ber ku hûn heq in.

Ez dixwazim dîsan vergerme bal te. Li ser gupika çiyayê te yê bilind, bi serbestî bikim hawar: ***her bijî Kurd u Kurdistan***.

Dixwazim li ser gol, çem û kaniyên te, bişom çavên ronikbarandî yê wan zarokên seba azadiya te mane sêvî û bêpar mane li dîtina bab û heta bo carekê jî hest nekirin lêvên baban ser rûmetê xwe yê xweşik. Ez bawer im ku hindek xwîna babê van sêviya jî tevlî ava te bûye.

Dixwazim li Mirgewer, Tirgewer, Soma, Biradost, Enzel, Kinarberoj û heta Şipîranê gund bi gund û mal bi mal bigerim û hemû kesê/î silav bikim. Şûna şehîdbûna hemû şehîdan peyda bikim û bi gulavê, gulavbaran bikim. Li ser gora van tacê gulan danêm û sicdê bibim bo can û ruha wan ya paqij re. Destê hemû jinên şehîdan ramûsim, ji ber ku bi keda wan destan zarokên sêvî hatin mezinkirin ku li pêşerojê bibin cihê hêviya gel û biparêzin azadiya ku bi xwîna babê van hatibû bidestxistin.

Roja azadbûna te, roja keyf û şahî û dîlanê ye. Roja çûna min e bo biheştê. Ji ber ku baxçê te jî nimûna baxçê biheşta Ehûra ye. Dixwazim di bin sîbera baxçê te de mandîbûna çend saliya xerîbiyê li xwe birevînim û bi dîtina perperokên ku bi azadî ser gulan re difirin, careke din bi dengê bilind bikenim. Ev keniya ku li kûratiya dil ve bê ser lêvan. Ev keniya ku li ser lêvên min revî bû ji vê dema ku min tu cih hêlabûyî.

Dixwazim vergerme ev mekteba te ya ku min cih hêşt li ber dijmin. Navê vê danim mekteba Simko. Eger wextê fêrbûna dîrokê be, mamosta bo min bêje hindik li rola Qasimlo ku jê fêr bim jîna birûmet û bijîm tevî cîranan bi aştî.

Dixwazim li hemû gundên te yên kavilkirî, li şûna her malkê de koşkek bedew ava bikim. Bila mezinatiya wan hindî kela Dim-Dim be. Ji ber ku xwediyên her yek ji wan malên kavilkirî, Emîrxanekî Lepzêrîn bû. Dema şahî û govendê, bila hunermendên te piyanoyê lêxin. Reng be dengê piyanoya van jî weke dengê piyanoya Simko be ku dijmin li Çariyê bi talan bir.

Dixwazim rica bikim li hemû zimanzanên ku ser axa te dijîn ku helbestên Perwîn Itisamiyê bikin Kurdî. Her beytek ji van helbestan reng be her ev be ku Qasimlo jê hez dikir.

Ji ber ku li panahiya erd û kûratiya gola te arxayîn bim, hemû rojê ezê kitêba **Kurdistan û Kurd** bigirim dest û li gorî nivîsên vê pirtûkê ezê qiyasa av û axa te bipîvim.

**Dr. Selah Seedula:**

# "HEYA KU YEKÎTÎYA WELAT ÇÊ NEBE, YEKÎTÎYA ZÎMAN JÎ ÇÊ NABE"

**Hevpeyvîn/Dara Natiq**



Xwendevanên hêja û birûmet yên Agirî, çend roj berî koça dawî a nivîskar û dîrokzanê naskirî yê gelê Kurd **Dr. Selah Seedula**, em çûn Hewlêra paytext da ku wî û Sînemxan Bedirxanî a hevjîna wî ziyaret bikin û derheq rola Bedirxaniyan di dîroka bizava rizgarîxwaz a gelê Kurd bi Sînemxanê re hevpeyvînek taybet çê bikin. Lê di dema hevpeyvînê de Seydayê nemir Selah Seedula jî di bersiva hin pirsan de ku me bi hev re nîqaş dikir, zêdetir bala min kişand.

Lewma me jî hewce zanî ku di vê hejmara Agirî de, em wan gotinên nemir Selah Seedula bêxin ber çavên we xwendevanên hêja û di hejmara tê jî, emê deqa hevpeyvîn tevî Sînemxanê di Agirî de biweşînin.

**Selah Seedula kî ye?**

Selah Seedulah di 15'ê meha Çiriya Pêşîn a sala 1930'an de li bajarê Zaxo a ser bi Başûrê Kurdistanê ji dayîk bûye. Xwendina xwe li bajarê Zaxo û Rewandizê temam kir. Piştre çû Birîtaniya û endazyariya xwe a di warê Petrolê de li zanîngeha wê derê wergirt. Piştre dizivire welat û li bajarê Kerkûkê dibe Endazyarê Petrolê. Ew cuda ji karê xwe yê Endazyariyê xebata xwe ya nivîsîn û lêkolînê jî bi awayekî micid dimeşand. Navhatî bo cara yekemîn pirtûkek bi navê **Kurdistan welatek parçekirî di Rojhilata Navîn de**, derheq dîroka Kurdan bi zimanê Îngilîzî nivîsand ku bala raya giştî a cîhanê kişand ser doza Kurdan, ku piştre bi sedema girîngiya wê, ew pirtûk bi çar zimanên Rûsî, Îngilîzî, Erebî û Kurdî hate wergerandin. Di vê pirtûkê de wî bo cara yekemîn hin belge û dukomentên nihênî ên navbera nûnerên London, Stenbol, Bexda û Tehranê derheq doza Kurdan û perçebûna axa Kurdistanê dide xuyakirin.

**Me derheq kar û xebatên wî xwest ku ew hin agahiyan bide xwendevanên me, navhatî wiha bersiv da:**

Min heya niha nêzîk 20 pirtûkan nivîsandiye. Piraniya wan li ser doza siyaset, rewşenbîrî, wêje, ziman û dîroka Kurdan in. Pirtûka min ya ji hemûyan girîngtir **Ferhenga Selahedîn a Îngilîzî-Kurdî** ye, ku ev yekemîn ferheng bû bi zimanê Îngilîzî-Kurdî û 15 salan li ber xwe da ku 1150 rûpel e û ji 78000 peyvên Îngilîzî û 300000 peyvên Kurdî pêk hatiye. Piştre romana min a bi navê **Dîplomasî** ye ku çîroka wê li ser Kurdistana Rojhilat hatiye nivîsandin.

**Navhatî herwiha qala pirtûka xwe a bi navê Gilgamêş kir û got:**

Ev pirtûka jî pir girîng e, ji ber ku destana Gilgamêş basa çîroka Someriyan dike. Di çîrokê de diyar dibe ku Someriyan pêwendiyek tevî Kurdan heye. Li wir ji min re xuya bû ku zimanê Someriyan nêzîk zimanê Kurdî ye. Mozexaneyek Someriyan hebû li Bexdayê, min hin peyvên Kurdî bi xwe re birin, xuya bû ku Somerî jî wan peyvan her bi vê wateyê û weke Kurdî bilêv dikin. Piştre min lêkolîn kir, derket ku Somerî li çiyayê Kurdistanê derketine û hatine Başûrê Îraqê. Eva ji bo dîroka Kurdan kilîtek girîng e ku diyar dibe dîroka Kurdan çend kevn e.

Somerî berî 5000 salan dest bi nivîsînê kirine û li ser Kurdan axivîne. Eva ji me re pirr girîng e, ji ber ku me hertim dîroka Kurdan bi Medya ve girê dida ku eva jî dibe 2500 sal berî niha.

**Dr. Selah Seedula derheq gotinên ferhad Şakelî ku di Konferansa Perwerdehiyê a Hewlêrê birêve çû ku wî bi sivikî qala rola malbata Bedirxaniyan kiribû û gotibû ku wan siyaseta Kemalîstan peyrewî dikirin, wiha axivî:**

Gotina Şakelî êrîşek bêrûmet bû. Herkes dikare li ser zimanê standard yê Kurdî biaxive û ra û nêrînên xwe bide diyarkirin. Lê wî êrîşek bêrûmet kire ser hêma, rêber û hîmdadê rewşenbîriya nû a Kurdî. Ew rêberên ku xebatek dilsoz û bêhemta bo Kurd û Kurdistanê meşandine.

Ew mirovên giranqedir û rênîşanderên dîroka rizgarîxwaza Kurdanin ku yên mîna Şakelî bi nezanî êrîşê ser wan dikin. Me dixwest ku em vê bêbextiyê bidin dadgehê, lê me piştre mêze kir ku ew kesane axavtinên wiha kirêt dikin,... lê me ev yeka bi hewce nezanî.

**Dr. Selah Seedula derheq xebata rojnama Agirî wiha got:**

Gellek keyfa me hat ku me dît birayên me yên Rojhilat li ser siyasetên baş dimeşin. Ew dizanin ku di Kurdistanê du zaravên sereke hene ku guhê xwe didin herduyan. Weşana Agirî bi tîpên latîn û bi Kurmanciya Jorîn pêşkevtinek pirr baş bû bo hevgirtina Kurd û zimanê Kurdî. Ev pêngave dikare Kurdên herçar parçên Kurdistanê nêzîkî hev bike. Agirî jî xwedî





bandorek erênî bûye bo ji hev nêzîkkirina Kurdan.

**Me di pirsek xwe de derheq zimanê standard yê Kurdî di demek nêzîk de xwest ku em nêrîna wî jî bizanin, Dr. Selah wiha bersiv da:**

Zimanê standard di demek nêzîk de çê nabe. Niha me du zaravên sereke yên Soranî û Kurmancî hene ku herdu jî standard in. Herdu zarav jî demek dirêj e ku pê tê nivîsandin û xwendin. Erkê me ye ku em wan ji hev nêzîk bikin û xwe hînî wan herdu zaravan bikin.

Dema ev yeka hate kirin, êdî piştî çendîn salan ev hesasiyeta namîne ku mirov bi kîjan zaravan biaxive. Nabe carê em bilez bikevin.

**Navbirî derheq rola rewşenbîr û nivîskarên Kurd bo avêtina gavên hewce derheq zimanê standard yê Kurdî wiha got:**

Pirr kêm gav hatine avêtin. Ji ber ku eva 15 sal e ku em di vî parçê Kurdistanê de azad bûne. Lê niha hewce ye ku hikûmet guhê xwe bide bernama perwerdehiyê û gavên hewce bo hînkirina xelkê Hewlêr û Silêmaniyê bi herdu zaravên Kurmancî û Soranî bavêje. Bila xelik lezê nekin, herdu zarave xwediyê dîrok, rastnivî û pêşketina xwe ne. Heya ku yekîtiya welat çê nebe, yekîtiya ziman jî çê nabe.

**Dr. Selah Seedula gotina dawiya xwe ji hevdîtina me de li ser Agirî anî ziman:**

Ez Agirî baş dixwînim û xebata wê jî baş dibînim. Zimanê wê pirr baş e û gellek pîroz dikim ji Kurdên me yên Rojhilat, ji ber ku vê hindê têdigehin ku miletê me bi du zaravan diaxivin û ber vê hindê rojnama Agirî derdixin û ev yeke pêngavek pîroz e. Ez carek din xebata we pîroz dikim û serkevtî bin.

Sed mixabin çend rojan piştî çêkirina hevpeyvînê bi Dr. Selah re, me bihîst ku ew çû ser dilovaniya Xwedê. Ew tu car di nav dilê Kurdan dernakeve, ji ber ku nemir Dr. Selah gellek xizmetên mezin û girîng ji bo gelê xwe kirine û berhemên wî diyarên wî kesayetiyê mezin in ji bo me ku heta navê wî di nav dilê netewa Kurd de zindî bihêlin.

Riha wî şa be.

# Çapên Nû Yên Şerefnameyê

Kevintirîn pirtûka li ser dîroka Kurdan "Şerefname / Dîroka Kurdistanê" a Şerefxanê Bedlîsî bi wergera Ziya Avci di nav Weşanên Avestayê de derket. Nusxeya ku wek kitêba 200 a weşanxanê derketiye li ser kaxeta şamua û bi cild û şomîz hatiye çapkirin û mînyaturên kitêbê bi reng di 32 rûpelê art de cî girtine. Ji xeynî çapa taybet çapek din jî bi kaxet û bergê normal derketiye. Kitêba 'Ebdurreqîb Yusif "Hunerê Tabloyên Şerefnameyê" ku ji analîzê li ser mînyaturên Şerefnameyê pêk tê jî di eynî demê de çap bûye. Bo danasîna kitêbê dosyayek wek diyarî tê belavkirin û di 09.11.2007 de li Diyarbekrê hola Diyarbakir Sanat Merkezi de pêşengehek ku ji mînyaturên Şerefnameyê pêk tê ê bê li darxistin. Berî pêşengehê bi navê "Şerefname û Şerefxanê Bedlîsî / Serpêhatiya Kitêbekê" konferansek li eynî holê bi beşdarbûna wergêrê




kitêbê Ziya Avci, Kadri Yildirim û Abdullah Keskin çêdibe. Di pêşengehê de tevî 20 minyaturên Şerefnameyê çap û wergerên cihê ên Şerefnameyê jî tên pêşkêşkirin.

# Ferhengokek Din Bi Ferhengên Kurdî Zêde Bû

Heta niha gellek ferheng hatine amadekirin û weşandin, niha yekê din li wan hate zêdekirin. Ferhenga Kurdî-Kurdî ya Kamêran Botî ji Weşanên Do derket.

Ferhenga Kurdî-Kurdî ya Kamêran Botî ku çapa wê ya yekem îsal ji Weşanên




Sipîrêzê li Başûr derketibû, çapa wê ya nû, bi kurmanciya Bakûr li Stenbolê ji Weşanên Do derket. Ferhenga Botî ku li dor 15 hezar peyvan di nava xwe de dihebîne, li hemberî peyvan wateya wan pêşkêş dike.

Amadekarê ferhenê Kamêran Botî ji zarokatiya xwe ve bala wî li ser peyvên kurdî bûye, dibêje, "Min her tim dixwest peyvên kurdî kom bikim û zimanê xwe bihêz bikim" û wiha didomîne: "Li gund û dîwanxaneyan min gellek guhdariya pîrejin û pîremêran dikir, dema mamik, pend û stran digotin û peyvên nû demidest min li kaxezê dinivîsandin ku ji bîra min neçin. Min gellek guhdariya Radyoya Bexdayê kiriye."

Ferhenga ku Osman Mehmed sererastkirin û pêdeçûna wê pêk aniye ji 720 rûpelan pêk tê. Îsal Umîd Demîrhan ferhengeke Kurdî-Kurdî ku ji 8500 peyvî li Tirkiyeyê çap kiribû û ferhenga Kamêran Botî jî wekî duyemîn ferhenga Kurdî-Kurdî ye ku li Tirkiyeyê çap dibe.

Her wiha di ferhengê de digel peyvan, alfabeya Latînî ya kurdî, dengdar û dengdêrên wê, navên roj, meh û demsalan, lîsteya navên welatan û zimanên wan û hin nîşaneyên ku di zimanê rojane de têne bikaranîn jî pêşkêş kiriye.

***Diyarname***

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**

# Kesên Ku Wekî Min Nafikirin Bizin In



Ji dema ku Ehmedînijad bûye Serok Komarê Îranê, ji ber nezanî û çand û kultura xwe ya kêm û lawaz, berdewam tiştan diqewimîne ku gotinên wî pirr ecêb û balkêş in. Vê dawiyê jî Serok Komarê Îranê Ehmedînijad, di dema seredana xwe bo parêzgeha "Xorasana Başûr", di nav xelkê de diaxive û ji ber ecêbbûna gotinên wî, medya û Çapemeniyan, beşek ji wan neweşandin. Wî dema ku di nav xelkê bajarê Bîrcendê de diaxive, bi awayekî tund rexne ji neyarên xwe bi taybetî ew kesên ku bi awayekî ronakbîrane dijberiyê tevî siyasetên wî dikin, bi bizin nav dike û dibêje: "Kesên ku wekî min nafikirin, Bizin in.

Roja 12.11.2007'an jî, di axavtina xwe ya zanîngeha Tehranê de got: "Kesên ku neyarên siyasetên Etomî ên Îranê ne, xayîn in."

Hêjayê gotinê ye ku di vê demê were ku Ehmedînijad, ev berpirsiyariye bi destve girtiye, pêlên tepeserkirina navendên rewşenbîrî, zanîngeh û rojnamevanan gellek bi tundî dest pê kiriye û bi awayekî ku Îran weke mezintirîn girtîgeha azadîxwaz û rojnamevanan hatiye binavkirin.

# Xwarina Piyazê Mirov Ji Nexweşiya Dil Diparêze



Komek ji şarezayên warê giyahnasiyê, di encama lêkolînan de, dane eşkerekirin ku xwarina risqên ku mada Filavonoyd têde be, dibe hegera parastina mirov ji nexweşiya dil.

Pispor dibêjin ku ev madeye zêdetir di bergên ça û piyazê de heye. Lewra daxwazê ji mirov dikin bo vê çendê ku tûşî nesaxiya dil nebin, hewce ye ku rojê 100 heya 200 girem piyazê bixwen.

# Kureya Cîhanê Ya Hîtler Bi 100 Hezar Dolar Hate Firotin



Avesta-Kureya Cîhanî ya ku dîktator **Adolf Hîtler** di şerê cîhanê yê 2'mîn de bi kar dihanî bi 100 hezar dolar hate firotin.
Li California di bazareke vekirî de kureya Hitler hate firotin.
Ew kure di dawiya 1945 de di mala wî ya xerabkirî de hatibû dîtin.

Kure ji aliyê xwediyê otelekê ve li San Francisco Bob Pritikin hate kirrîn...
Kure ji aliyê eskerê amerîkî John Barsamian ve li mala Hitler li çiyayên Baverya hatibû dîtin.

# Keça Kurd Ozlem Çekîç Kete Parlamentoya Danîmarkê



Piştî encamên hilbijartinên du roj berî niha yên Danîmarkayê diyar bû keça kurd, **Ozlem Çekîça** 31 salî, bi serfirazî û tercîhkirî ji partiya SF-ê Socailistisk Folkeparti (Partiya Gel ya Sosyalîst) ket Parlamentoya Danîmarkayê.
Her weha vê partî ê di Parlamentoyê de 23 nûnerên wê jî hebin ku yek jê Ozlem Çekîç e.
Encama ji bo berbijarê din ê kurd, Serdar Benlî hîn jî ne diyar e.
Di hilbijartinên îsal zêde guherîn çê nebû. Wê hukûmeta berê, cara sêyemîn bi serokatiya Anders Fogh Rasmussen û di biloka rast de pêk bê, Partiya Venstra (V) di sala 2005'an de 52 parlementer bi dest xistibûn, lê îsal ev hejmar daket 46'an. Netkurd

# Avakirina Welatek Felestînî, Pêşiya Tund Û Tûjiyên Îranê Digire


Condoleezza Rice

Kondolîza Rays, Wezîra Kar û Barên Derve yên Amerîkayê derheq tawanbarkirina Îranê bi tund û tûjî yên di herêmê de got ku: "Avakirina welatek bihêz a Felestînî dikare astengiyek be ji pêşiya kiryarên rejîma Îranê".
Wê her wih got ku welatê wê li hember her cure gefekê, dê berevaniyê ji Îsraîlê bike.
Gotinên han ên Raysê di demekê de ye ku welatê Amerîkayê, hewlê ji bo nehêlana arîşe û pirsgirêkan di navbera Felestînî û Îsraîliyan de dide û ji bo armanca han mijûlê lidarxistina konferansa aştiya Rojhilata Navîn bi beşdariya welatên nava dozê û welatên Erebî ye.

Eva jî di demekê de ye ku rejîma Îranê lidarxistina konferansa han mehkûm kiriye û her wiha ji welatên misilman daxwaz kiriye ku beşdarî konferansa han nebin.
Raysê derheq avakirina welatek Felestînî got:" Welatek Felestînî a berpirsiyar, dikare astengek be li hember gefên di herêmê de. Lewra avakirina du welatên serbixwe zêdetir ji her demekê hewce ye.